Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 82
29'ê Şibatê
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

Seredana Şandên PDK Îranê Li Mektebên Siyasî Ên PDK'ê Û YNK'ê
R.2





**12 Partiyên Kurd û Kurdistanî, Di Daxuyaniyeke Hevbeş De Ragihandin:**

# "EM ÊRÎŞA Lİ SER HERÊMA KURDİSTANÊ ŞERMEZAR DİKİN"



**12 Partiyên Kurdistanî êrîşên bejahî û esmanî ên Turkiyê bo ser Herêma Kurdistanê mehkûm kirin. R.2**

Ji roja 22'ê Şibata 2008'an vir ve, Artêşa Turkiyê dest bi operasiyoneke bejahî jî bo ser axa Kurdistana Başûr kir û heta niha didome. Tevî operasiyona bejahî, balafirên Artêşa Turkiyê jî, çiya, gund, pir û gellek cihên jiyana xelkê sivîl dane ber bombeyan û ziyan û xisareke zaf gihandine herêmê. Pirraniya gundiyên deverê war û cihê xwe bicî hêlane û gellek gund hatine valakirin.

Dewleta Turkiyê, hebûna PKK'ê li ser tixûb kiriye hêcet.

Êrîş û leşkerkêşiyên Turkiyê dê bibe sedema aloziya rewşa siyasî û ewlekarî a Kurdistanê û Îraqê. Ev êrîşa Turkiyê di asta navneteweyî de bi tundî hat/tê şermezarkirin.

Parlemana Kurdistanê biryar girt, heke Turkiye êrîşên xwe nede rawestandin, hemû pêwendî û peymanên Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi Turkiyê re dê bên qutkirin.

## Enistîtuya Kurdî Ya Parîsê Konferansek Li Ser Pirsa Kurd Lidar Xist



Roja 25'ê Şibata 2008'an, Enistîtuya Kurdî ya Parîsê Konferanseke mezin û berfireh li ser pirsa Kurd û herwiha xebat û tekoşîna Enistîtuyê lidar xist. Konferans bi boneya 25'emîn salvegera avakirina Enistîtuyê ve hatibû sazkirin û tê de bi sedan kesayetiyên siyasî, navdar û akademîk û nûnerên partî û rêxistinên siyasî beşdar bûn. Kesayetiyên wek **Ednan Muftî**, Serokê Parlemana Kurdistanê, **Daniyal Mîteran, Franswa Lonkel**, serokê Lijneya Derveyî Parlemanê ser bi Partiya Sosyalîst, **Bêrnard Doran**, **Pîter Galbirêt** û nivîskarên wekî **Canatan Rendel**, **Cîrard Şalyar** û çendîn kesayetiyên perçeyên din ên Kurdistanê di Konferansa han de beşdar bûn.

Şandeke PDK Îranê bi serokatiya rêzdar **Hesen Şerefî**, Cîgirê Sekreterê Giştî yê Partiyê û **Dr. Xusro Ebdulahî**, endamê Cihgirê Komîteya Navendî û berpirsiyarê pêwendiyên navneteweyî ên vê partiyê bi fermî ji Konferansê re hatibûn vexwendin û tevî civînên Konferansê bû.

## Şandeke PDK Îranê Seredana Mekteba Siyasî A PDK'ê Kir



Roja sêşem, 19.02.2008'an, şandeke PDK Îranê bi serokatiya birêz **Mistefa Hicrî**, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, seredana Deftera Siyasî a Partiya Demokrat a Kurdistanê kir û ji aliyê **Fazil Mîranî**, Sekreterê Mekteba Siyasî a partiya han ve hate pêşwazîkirin.

Di seredana han a dostane de, Fazil Mîranî, baseke siyasî li ser rewşa niha a Herêma Kurdistan û Îraqê pêşkêş kir.

Piştre Mistefa Hicrî, basek li ser zirûfa niha a Îranê di warê siyaseta navneteweyî, herêm û navxwe de pêşkêş kir. Wî di basa xwe de derherq wan pirs û astengên ku rejîma Komara Îslamî a Îranê bi wan re berbirû ye, axivî.

Birêz Hicrî her wiha qala rewşa Kurdistana Îranê û xebata PDK Îranê û hêzên siyasî yên Îranê kir.

Di dawiya hevdîtina han de her du aliyan tekez li ser berfirehtirkirina pêwendiyên dostane ên di navbera hev de kirin.

Hêjayî gotinê ye ku şanda PDK Îranê pêkhatibû ji birêzan: **Mistefa Hicrî**, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, **Mihemednezîf Qadirî**, endamê Deftera Siyasî, **Rostem Cehangîrî** û **Mihemedsalih Qadirî**, endamên Komîteya Navendî.

## Şandek Ji PDK Îranê, Seredana Binkeya Mekteba Siyasî A YNK'ê Kir



Roja şemî, 23.02.2008'an, şandeke payebilind a PDK Îranê bi serokatiya **Mistefa Hicrî**, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê seredana Mekteba siyasî a YNK'ê kir û ji aliyê **Mela Bextiyar**, Berpirsê Desteya Kargêrî a Mekteba Siyasî ya Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê hate pêşwazîkirin.

Di vê hevdîtinê de, Mela Bextiyar qala zirûfa Îraq û Başûrê Kurdistanê, pêwendiyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê tevî Hikûmeta Navendî a Îraqê, zirûfa Kerkûkê û madeya 140'ê kir.

Piştre birêz Mistefa Hicrî li ser zirûfa navneteweyî, herêm, Îran û Kurdistanê axivî û bi hev re guhertina bîr û rayan kirin.

Di dawiya hevdîtina han de, her du aliyan li ser domandin û berfirehtirkirina pêwendiyên di navbera hevdu de tekez kirin.

Daxuyaniya 12 Partiyên Kurd Û Kurdistanî Derheq Êrîşên Turkiyê Bo Ser Herêma Kurdistanê

## "EM ÊRÎŞA Lİ SER HERÊMA KURDİSTANÊ SERMEZAR DİKİN"

Ji roja Pêncşemî, 21'ê Şibata 2008'an ve, dîsan hezên leşkerî yên Turkiyê ji rêya asîman û bejahî ve operasiyonên bihêz û berfireh bo ser axa Herêma Kurdistanê bi kûrahiya 10 Kîlometran dest pê kirine.

Mixabin di encama wan êrîş û bombebaranan de, zirar û ziyanek madî û menewî a zaf gihaye sirûşt, jiyan û rewşa gundiyên ser sînor yên Herêma Kurdistanê.

Ji sala 1991'ê vir ve eva çendemîn car e ku Generalên dewleta Turkiyê êrîşên bi vî awayî bo ser Herêma Kurdistanê bi hêceta berxwedanî û şer li dijî hezên Partiya Karkerên Kurdistanê dimeşînin.

Lê di rastî de ew êrîş û destdirêjiyên hêzên Turkiyê tu merem û armancek ji bilî tevlîhev û alozkirina rewş, aramî û tenahiya Herêma Kurdistanê û gef ji destkevtên siyasî û netewî yên vê para Kurdistanê ninin.

Herêma Kurdistanê fakterek berbiçav a sîstemek demokratîk li Îraq û deverê, herweha parek ji dewleteke xwedî serwerî ye, lewre tu bihane û hêceteke dewleta Turkiyê li gor pîvan û rê û cihên yasayî û navnetewî nine û meşrûiyet û rewatiyê bi êrîş û destdirêjiyên bo ser Herêma kurdistanê nade.

Em xatircem in ku şer û destdirêjî ne tenê pirs û kêşeya han çareser nake, belkî deverê bi aloziyên bêtir ve berbirû dike. Lewre take rêya çareseriya arîşe û pirsan, gotûbêjên rasterast in di navera dewleta Turkiyê û Herêma Kurdistanê de. Derheq pirsa navbera Turkiye û PKK'ê jî, pirsa han bi şer û êrîşan çareser nabe û eva çendemîn car e ku tê ceribandin. Belkî take rêya dawîanîn bi pirsên han misogerkirina maf û azadiyên neteweya kurd di Turkiyê de ye.

Hewce ye rêxistina NY, Konseya Ewlekarî a Neteweyên Yekbûyî û kom û komeleyên alîgirên mafên mirovan, sînorekê ji bo destdirêjiyên dewleta Turkiyê diyarî bikin û li warê yasayî û mirovahiyê ve, hevwelatiyên sivîl yên Herêma Kurdistanê ji gef û êrîşên hêzên Turkiyê biparêzin.

Bê guman di gava yekemîn de, parastina sînorên Îraq û Herêma Kurdistanê û pêkanîna ewlehî û tenahiyê ji bo hevwelatiyan û parastina wan ji her cure gef û metirsiyekê, erkê hêzên hevalbend di Îraqê de ye. Lewra em daxwazê ji wan dikin ku li hember erkê xwe de berpirsiyar bin û li vir şûnde derfeta serberedayî û destdirêjiyê bi dewleta Turkiyê nedin.

Herweha em daxwazê ji Hikûmeta Îraqa Federal dikin ku li hember destdirêjiyên dewleta Turkiyê de bêdeng nemîne û rêya lezgîn û bi piratîk ji bo çareseriya kirîza ser sînorên Herêma Kurdistanê û parastina can û mal û halê hevwelatiyan bigre stûyê xwe.

Em ev 12 Partiyên wajokerên vê daxuyaniyê, êrîş û destdirêjiyên dewleta Turkiyê û zerer û zirarên gihandî bi hevwelatiyên kurd bi rewa û berheq nizanin û bi serberedayîtî û maytêkirinek eşkere û herweha guhnedan bi tu pîvan û lihevhatinên parastina sînor û serweriya siyasî a welatan dihesibînin û bi tundî mehkûm û şermezar dikin. Em hevxemiya xwe bi wan kesên ku bi her awayekê ketibine ber êrîşan, eyan dikin û herweha amadebûna xwe jî ji bo stûgirtina her erk û wezîfeyekê ji bo dijkiryara van êrîşan û berevanîkirin ji destkevtên neteweya xwe li Başûrê Kurdistanê radigehînin.

**Partiya Sosyalîst a Kurdistanê (PSK)**
**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Partiya Yekîtiya Kurd Li Sûriyê (Yekîtî)**
**Partiya Demokrat a Kurdistan-Bakûr**
**Saziya Xebata Kurdistana Îranê**
**Rêkevtina Demokratîk ya Kurd li Sûriyê (Wefaq)**
**Partiya Pêşverûya Demokrata ya Kurd li Sûriya**
**Partiya Welatparêzên Kurdistanê (PWD)**
**Partiya Yekîtiya Demokratên Kurd li Sûriyê**
**Partiya Azad a Kurdistanê (PAK)**
**Partiya Demokrat a Kurd li Sûriyê (Elpartî)**
**Partiya Azad a Kurd li Sûriyê**

## Kongireya Neteweyên Îrana Federal: "Em Hilbijartinên Nimayişî Ên Meclîsa Şewra Îslamî A Heştem Baykut Dikin"




Ewa ku di Komara Îslamî a Îranê de binav hilbijartin tê binavkirin, di rastî de tevî hemû usûl û azînên herî destpêkî ên bingehên hilbijartinek azad, adilane, rastîn û realîte dijberî hebûne û vê rejîmê tu demekê derfet û firsenda beşdariya serbest û hilbijartina azad ji gel, partî û kesayetiyên siyasî re nedaye. Heke çi di sazûmana Komara Îslamî a Îranê de, pêkanîna partî û rêxistinên siyasî ji bo neteweyên Îranê bi tevahî qedexe ye.

Înkarkirin û binpêkirina maf û hiqûqên gelên Îranê di warê hilbijartinan de, hertim yek ji taybetmendiyên berçav ên rejîma Komara Îslamî û ji bingehên îdeolojîkî, olî û rêbazên wê bûye û qanûna bingehîn a vê sîstemê jî tevî Xwedêyî hesibandina vê rejîmê û şidandin û pêdandina "Welayeta Mutleqe a Feqîh" û Konseya Parêzvana(Şewra Nobedar) û gellek mekanîzm û berteskkirinên din, bi kiryar hemû hilbijartinek di vê sîstemê de ji naverok û kakila xwe vala û pûç kiriye.

Berbijar berî vê çendê ku bigihîjin qonaxa hilbijartinê, ji aliyê Konseya Parêzvan û rejîma desthilatdar, di pêş de carekê hatine hilbijartin û divêt xelk deng bidin hilbijêrên wan, lewra hilbijartin di çarçoveya vê hikûmetê de nimayîşek e û bi tevahî bêwate û pûç in. Ewa ku di Komara Îslamî a Îranê de binav hilbijartin tê binavkirin, di rastî de tevî hemû usûl û azînên herî destpêkî ên bingehên hilbijartinek azad, adilane, rastîn û realîte dijberî hebûne û vê rejîmê tu demekê derfet û firsenda beşdariya serbest û hilbijartina azad ji gel, partî û kesayetiyên siyasî re nedaye. Heke çi di sazûmana Komara Îslamî a Îranê de, pêkanîna partî û rêxistinên siyasî ji bo neteweyên Îranê bi tevahî qedexe ye.

Di rastî de, hilbijartina gerra heştem a Meclîsa Şêwra Îslamî heta tevî pîvanên bi tevahî antî/nedemokratîk ên vê rejîmê jî nahê nirxandin. Vê carê bi mifahwergirtina berfireh ji mekanîzma betalkirina kêrhatîbûna berendaman, heta reformîstên hikûmetî û xizmetkarên heta niha ên vê rejîmê û ew kesên xweyî yên ku hin ji wan heya duh rêveber û karbidest jî bûn, bi temamî ji ortê hatine rakirin. Vê carê jî heta berî Şêwra Nobdar, Şandên rêvebir ên Wezareta Hundir ketine meydanê û tu şik û gumanek nehêlane ku li çûna hemûyan, ji bilî wan bi xwe ji bo vê binav hilbijartinê dê pêşgîriyê bikin ku ev kare careke din bû sedema şerşorî û riswabûna wan di seranserê cîhanê de.

Em şahidê redkirina kêrhatîbûna komek ji berbijaran ji aliyê Konseya Parêzvan in ku di rastî de bi xwe beşek ji desthilata "istiswabî" ne (ku jêhatîbûna endamên Şêwra Nobedar bi xwe jî rewayî, berheqî û dilxwaziya xelkê tune ye) û kiryarek wilo yê bûye siyasetek giştî a desthilatdarên Îranê ku ji tu kesê ne veşartî ye. Lewra çaxekê ku rejîmeke wiha bi nîşandana naveroka paşverû û kevneperestane û binpêkirina xwestek û daxwazên herî bingehîn û sereke ên neteweyê Îranê, ji bilî serkut, çewisandin û îdamê çi rêyeke din negirtiye pêşberî xwe, heta rehm û dilovaniyê bi heval û şirîkên xwe jî nake, divêt mirov bizane û hişyar be û nakeve nava wê leyîz û telika rejîmeke wisa dijî mirovî û bi awayekî şiyar pîlan û nexşeyên biyom û pîs ên wê bi baykuta hilbijartinan, vala bike.

Pêvajoya redkirina kêrhatîbûnan, rewşeke taybet pêk aniye û yê bûye sedem heta ew partî û kesayetiyên ku li tavahiya jiyê Komara Îslamî di nimayîşên binav hilbijartinan de jî beşdarî dikirin, derbarê beşdarîkirin di hilbijartina meclîsa heştem de bi eşkere gumanên xwe bînin ziman û bi vî awayî eniya herî berfireh a baykuta hilbijartinê di dîroka Komara Îslamî de pêk bihê.

Baykuteke wiha yek ji awayên zindî û ektîv ên xebat û berxwedana sivîl e ku bêguman rêveçûna micid a wê, desthilat aniye lerizînê û dê neçar bi paşdekêşanên yek li pey hev bi qazancê xelkê Îranê bike. Divêt peropagandeyên derewîn ên dezgehên sîstema stemkar a desthilatdar werin kifş û eşkerekirin û bi beşdarînekirin di hilbijartinan de, bersiva req û redkirinê bidin dewleta "padiganî"(leşkerî) heya nekarin ji vê hilbijartinê bona nîşandana qebûliyeta xwe, mifaha nebaş a propagandeyî bistîne. Herçiqas ku xelkê Îranê bi tevahî ji vê yekê agahdar in ku çûn bo ser sindoqên dengdanê tê wateya dana rewa û berheqiyeke wisa ku rejîm bi xurtî hewcedarê vê ye.

Hevwelatiyên hêja ên Îranî, hûn bi yeqîn dizanin ku gihîştina nûneran bi meclîsa heştem wekî gerrên berê ku bandoreke erênî li ser jiyan û çarenivîsa gelên Îranê nabe, loma divêt em bi baykutkirina hilbijartinê, xebat û bêfermaniya sivîl a xwe li dijî van desthilatdarên gemar ji raya giştî a cîhanê re bidin xuyakirin, hetanî bibe destpêkek ji bo kemilîna xebat di vê pêvajoyê de û bi berfirehkirina nerazîbûnan, em derbek qahîm û xurt li peykerê dewleta leşkerî – ewlekarî a Welayeta Mutleqe a Feqîh bixin. Hûn piştrast bin ku ev çeka aştîxwazane di çarçoveya xebata sivîl, çi di asta hundir û di asta navneteweyî de, dê gellek bibandor be û encama wê jî dê bi qazancê gelên Îranê be.

Kongireya Neteweyên Îrana Federal, hevgav tevî hêzên din ên demokratîk û azadîxwaz û hevkariya hemû Îraniyên nava girtîgehê, serbarê baykuta vê hilbijartina nimayîşî, hawara heqxwaziya neteweyên deredesthilat û bindest li Îranê bigehînine guhê raya giştî a cîhanê. Em hemû Îranî bi hev re dest di nav destê hevdu, dikarin bi baykutkirina vê hilbijartina nedemokratîk, rejîma leşkerî û fend û dekên derewîn ên wê riswa û şermezar bikin û desthilata stemkar, zordar û fêlbaz ku ne xwediyê tu hitbar û nifûzekê di nav gelên Îranê de ye ji holê rakin.

**Kongireya Neteweyên Îrana Federal**
**17.02.2008**

## Du Saziyên Parêzer Ên Mafê Mirovan, Daxwaza Betalkirina Biryara Îdamkirina 3 Çalakên Sivîl Yên Kurd Kirin

Rêxistina Çavdêr ya Mafê Mirovan û Saziya Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê di du daxuyaniyên cuda de, daxwaza betalkirina biryar îdamkirina **Ferzad Kemanger** û du çalakên din bi navên **Ferhad Wekîlî** û **Elî Heyderiyan**, kirin.

Rêxistina Çavdêr ya Mafê Mirovan daxwaz ji karbidestên rejîmê kiriye ku li ser gotinên Ferzad Kemanger derheq vê çendê ku navhatî di girtîgehê de hatiye îşkencekirin, lêkolînê bikin û ew memûrên ku di îşkencekirina navhatî de dest hebûne, bigihîjîne cezayê xwe.

Co Êstork, cîgirê beşa Rojhilata Navîn a Saziya han di vê derbarê de got: "Doza Ferzad Kemanger, nîşaneya vê çendê ye ku mafê mirovan li Îranê bi awayekî asayî tê binpêkirin". Kemanger tê îşkencekirin, bi awayekî nedadwerane tê dadgehîkirin û niha tevî biryara lidarvekirinê berbirû bûye.

Rêxistina Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê jî, serbarê îşarekirin bi çawaniya girtin, îşkencekirin û dana biryara îdamê ji bo Kemanger, Ferhad Wekîlî û Elî Heyderiyan, bi tundî nigeraniya xwe derheq biryara han eyan kir. Saziya han her wiha daxwaz ji berpirsên payebilind yên dezgeha dadê a rejîma Îslamî a Îranê kir ku li ser betalkirina biryara han û pêkanîna dadgeheke dadwerane û yasayî gavan bavêjin.

# Dema Ez Li Rojhilatê Kurdistanê Bûm

**Loqman Polat**

Ez di sala 1979 û 1980-yî de li Rojhilatê Kurdistanê, li cem Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê bum.

Di wê demê de Hizba Demokrat li hemberê rejîma Komara Îslamî ya ku Xumeynî rêberê wê bû, şerê çekdarî bi şêweya metoda şerê partîzaniyê – şerê gerîlla- pêk dianî. Rêberê partiyê rêberê gelê kurd ê hêja E. Qasimlo bû. Pêşmergeyên qahraman –leheng- yên Hizba Demokrat a Kurdistanê her roj li dijî artêşa dagirker û pasdarên îslamî yên Îranê çalakiyên leşkerî pêk dianî. Ew dem hinek heremên Rojhilatê Kurdistanê, gellek gund û navçe hatibûn azadkirin û di bin desthilatdariya Hizba Demokrat de bû. Pasdarên Komara Îslamî, leşkerên artêşa paşverû, teyarên –firokên-harbê – yên şer- bê ku ferq têxe nav sivîl û askerî –leşkerî- dihatin herder bombebaran dikirin, bi avêtina bombeyên wan gundî, jin û zarok dihatin kuştin. Pêşmergan bi mêranî û mêrxasî êrîşên pasdar û leşkerên artêşa Îranê dikir, wan têk dibir û gellek pasdar û leşker dikuşt û êxsîr – dîl – digirtin.

Li Rojhilatê Kurdistanê herêmeke azad pêk hatibû û ev herem bûbû cih û warê hemû welatparêz, kurdperwer û kesên pêşverû û şoreşger yên Kurdistanê û Îranê. Gellek endamên rêxistinên Îranî ji bajarên Îranê reviyabûn û hatibûn xwe spartibûn herêma azad ya Rojhilatê Kurdistanê. Min li wir hinek endam û alîgirên partî û rêxistinên Îranê, herweke endamên Tudehê, Peykarê, Tufanê, Çirîkhayê Fedaîyê Xelk (Ekseriyet û Eqaliyet), kesên ji grûba Eşref Deqhanî, Micahîdînê Xelk û hwd, dît û min li ser dîtin û ramanên wan agahdarî wergirt. Dema ez li Rojhilatê Kurdistanê bûm, min rêberê nemir Qasimlo nedît, lê paşî min wî li Swêdê dît.

Niha kîjan partî û rêxistinên siyasî li Îranê hene û çiqas xurt in, bihêz in, bêhêz in, ez nizanim. Lê, wê demê li Îranê hinek partî û rêxistin hebûn ku xwedî hêz bûn û di têkçûna Şahenşahê Îranê de roleke pêk anîn. Wan partî û rêxistinên Îranî di nav têkoşîna li dijê Şehînşah de cih girtin. Piştî têkçûna Şah, hêza Îslamî û serokê manewî ê hêza Îslamî Xumeynî hat ser hikum, bû desthilatdar û li hemberê hêzên çep sekinîn, ew hêz qedexe kirin, zilam û kadirên wan yên siyasî girtin, kirin hepis û zîndanan.

Ez ê li jêr bi kurtahî behsa çend partî û rêxistinên siyasî yên Îranî ku di dema salên heştêyî de li Îranî bi hêz bûn û têdikoşiyan bikim.

**Tudeh**

Tudeh "Partiya Komunîst a Îranê" bû. Ev partî partiyeke Sovyetî bû, yanî ew hevalbend û piştgirê Sovyetê bû. Tudehê ne şerê çekdarî, lê têkoşîna siyasî dimeşand. Di nav sendîka, karker û rêxistinên humanîter yên sivîl de û herweha herî piir di nav karkerên fabrîqan û karkerên petrolê de bi hêz bû.

Serokê partiya Tudeh Nûredîn Kîyanurî hate girtin û helwesteke teslîmbûnê wergirt. Ew tirsiya û li pêşberê rejîma Îslamî poşmaniya xwe diyar kir û ji Xumeynê doza lêborînê, efûyê, bexişandinê kir. Piştî tirsonekiya serokê Tudehê ev partî qels ket û paşê bû du cî.

**Peykar**

Peykar partiyeke Maoîst bû. Paşê ev partî bû Enwer Xocecî û Arnawidê parast. Partiyeke ewqas bi hêz nebû. Siyaseta wan li gor helwesta Arnawidê bû. Wan guhdariya radyoya Tehranê dikir û li gor wê siyaseta xwe dimeşand.

Niha Peykar heye yan tune, ez nizanim.

**Çirîkhayê Fedaî –ekseriyet, eqaliyet-**

Rêxistina "Çirîkhayê Fedaîyê Xelkê Îran" rêxistineke radîkal û şoreşger bû. Bandora siyaseta gerîlayên Amerîkaya Latîn li ser wan hebû. Ev rêxistin ne Sovyetî bû û ne jî Maoyî û Enwer Xoceyî bû. Rêxistineke Marksîst ya bi serê xwe bû.

Dîtinên wan gellek radîkal bû. Ev rêxistin paşî bû du cî. Ji yekê re "ekserîyet" û ji a din re "eqaliyet" gotin. Hinek kadirên siyasî yên "Çirîkhayê Fedaî – Eqaliyet" hatibûn xwe spartibûn Rojhilatê Kurdistanê. Komela û Hizba Demokrat – Partiya Qasimloyê nemir – ew diparastin. Paşê ew derbasê Tirkiyê û Ewropayê bûn.

**Gruba Eşref Deqhanî**

Hinek kadirên siyasî ji Çirîkhayê Fedaî veqetiyabûn û bi pêşewatiya Eşref Deqhanî grubeke siyasî pêk anîbûn. Ev grûba biçûk jî xwe spartibû Rojhilatê Kurdistanê. Bi qasê ku ez zanim ev grub paşê belav bû.

**Tufan**

Tufan partiyeke Maoyî bû. Wan siyaseta Çînê û Maoçîtiyê diparast. Partiyeke biçûk bû.

Niha ev partî heye yan tune, ez nizanim.

**Mucahîdînê xelk**

Mucahîdînê Xelk rêxistineke radîkal a Îslamî bû. Wê demê ev rêxistina Îslamî gellek xurt bû, bi hêz bû. Di têkoşîna li hemberê Şehînşah de ev rêxistin gellek aktîv bû. Paşê rêxistina Mucahîdînê Xelk bi Xumeynî re ket nav nakokiyê û ew bûn hemberên hev. Mucahîdînê Xelk dixwest desthilatdariyê têxe destê xwe, lêbelê hêzên Îslamî yên din nehêştin û li hemberê wê derketin. Piştî ku ev rêxistin li Îranê hate qedexekirin, wan hinek hêzên xwe birin li Îraqê bi cih kirin û gellek kadirên wan çûn Ewropayê.

Serokê Micahîdînî Xelk Mesûd Recewî ji Îranê derket û geh li Ewropayê û geh li Îraqê ma. Niha hêza vê rêxistinê weka berê ewqas xurt nîn e. Serokê vê rêxistinê jî qet nayê guhertin û her Mesûd Recewî ye.

**Komele – Îranî û Kurdistanî-**



Komele rêxistineke Kurdîstanî bû. Lêbelê paşî bu du cî û beşeke wê bû weke rêxistineke Îranî û wan ji bo seranserê Îranê xebata rêxistinî û şoreşa gelemperî ya seranserê Îranê parastin.

Ev ducîtî û dubendiya Komelayê hêj jî didome.

**Şêx Îzedîn Huseynî**

Şêx Îzedîn şêxekî welatparêz û pêşewayekî ruhanî yê Kurdistanê bû. Wê demê herî pirr nêzîkiya wî bi Komelayê re bû. Lê ew şexsiyetekî serbixe bû û kurdperwerekî hêja bû.

Niha rewşa partî û rêxistinên siyasî yên Îranê çawan e, ez nizanim. Bila vê mijarê jî yê ku zanê û haya wan ji rewşa siyasî ya Îranê heye, binivîse û biweşîne ku ez jî bixwînim û di derbarê partî û rêxistinên Îranî de agahdar bibim.

Dema ez li Rojhilatê Kurdistanê bûm, li wir gellek kadirên siyasî yên Ozgurlukçî – yên ku siyaseta Riya Azadî diparast, anku endamên PSK-ê – li cem Pêşmergeyên PDK Î bûn. Hinek Ala Rizgarî jî li cem meqerên Komele'yê bû. Ez li meqera Hizba Demokrat a li gundê Akçeqalê dimam. Hevalên min yên ku wê demê li cem Hizba Demokrat man yên ku têne bîra min ev in: Kamil Hesar. Ji bajarê Wanê bû. Di şereke li hember pasdaran de şehîd ket. Urfan Alpaslan – Serdar – serokê belediya Agirî bû. Di şereke li hember askerên ordiya tirk de şehîd ket. Remezan, ji Bîngolê bû. Belengaz ji Bîngolê bû. Ji ber nexweşiya qanserê li Swêdê çû ser heqiya xwe. Seyidxan – Avukat Yucel – niha li Holandê avukatiyê dike. Metîn ji agirîyê bû, niha li Stenbolê rojnamevaniyêdike. Dilo ji Amedê bû, niha li Swêdê mamostetî dike. Newroz ji Hekarî bû, niha li Almanyê di Komkarê de kar û xebata siyasî û civakî dike. Rojan li Danîmarkê nivîskariyê dike. Mistefa Duzgun, li Almanyayê bûye pîrê – seyidê-alewiyan û bi navê "Duzgun TV" televîzyon vekiriye. Fexrî, niha li navça Sêwerekê ye û tu tiştek nake. Kovan niha li Swêdê kar û xebata Federasyona kurd dimeşîne û berpirsiyarê kovara Berbangê ye.

## Lİ ME BİBORİN

Xwendevanên hêja ên Agirî, di hejmara 81'an a Agirî de, me nûçeyek li ser serdana şanedeke Tevgera Yekîtiya Neteweyî ya Kurd (TEVKURD)'ê ji Deftera Siyasî a PDK Îranê belav kir û di nûçe de, ji ber şaşiyek teknîkî navê birêz **Îbrahîm Gûçlû** bi Îbrahîm Gulçu hatibû nivîsîn.
Em lêborînê ji Îbrahîm Gûçlû û xwendevanên xwe dixwazin.

**Desteya Weşana Agirî**

# Jiyana Dijwar Ya Kasibkar Û Têledarên Kurdistanê

**Azad Kurdî**

Yek ji dîmenên dilêş ên jiyana keç û xortên neteweya kurd di Kurdistana Îranê de, ew rewşa dijwar û nebaş e ku kasibkar û têledarên kurd tê de dijîn. Jiyan li pêxema armanceke hêja û birûmet, ew jî peydakirina debara jiyana malbatên xwe û pariyeke nan ji bo zarokên xwe, bona rizgarî ji jarî û xizaniyê bi heqdesteke herî kêm yê mirovî, xebat di pêxema jiyanê de heta gihîştin bi lêva mirinê û qebûlkirina hemû xeterên ew rêyên bixof û cihê tirsê ku di dema têlekdarî û kasibkariyê de, berbirû dibin. Zehmet û mandîbûneke bêrade û şeqîbûna ruhî û derûnî û beden, laşê a wan di rêya debara jiyana malbatên xwe ji bo derbazbûn ji betalî û bêkariya ku Rojhilatê Kurdistanê pê re dinalîne. Ew ji bo berengarbûn li hember jiyana xwe a tejî êş, keder û zehmetî, dest didin ber karekê ku seranser jan, elem, pirsgirêk û rojreşî ye.



Jiyana kasibkar û têledarên kurd ên Kurdistana Îranê li ser sînoran ku hinek car bi neheq bi **qaçaxçî** tên binavkirin. Di vê nivîsarê de, em dê hewlê bidin, bi kurtî be jî çend aliyên cur bi cur li kar, xebat û jiyana kasibkarên kurd ên Rojhilatê Kurdistanê binirxînin û dîmen û wêneyeke biçûk ji jiyana dijwar û tejî kêşe û pirsgirêk a wan bidin nîşandan.

Pirsa yekem ku di vê derbarê de dikeve rojevê eva ye ku gelo çima jiyana kasibkarî û têledarî li ser sînoran!?

Bersiva vê pirsê gellek rohn û eşkere ye, kasibkar û têledarên kurd ên Rojhilatê Kurdistanê ew kar bi dilxwaz, vîn û îradeya xwe ne hilbijartine, belku eva vedigere ser ew rewşa siyasî, aborî û civakî ku tê de dijîn. Ji ber ku ew jî wekî hemû mirovên din hez dikin ku di asûdeyî, tenahî û rihetiyê de û di nava civakê de bijîn, kar bikin û naxwazin ku di rêya hewcedariyên jiyanê, sermaya herî buhagiran û biqîmet a jiyana xwe, yanî canê xwe bêxin xeter û tehlûkeyê.

Bêguman sebebkar û afirînerê vê rewşê jî ji bilî desthilatdarên Komara Îslamî a Îranê, tu kes û aliyekî din nine û berpirsiyariya vê yekê dikeve stûyê vê hikûmeta nedemokratîk. Çunkî sîstemên siyasî awayê jiyana takên civakê diyarî dikin û herwiha şekl û şêwaza rêveberiya desthilatê ye ku kar, rol û karekterê mirov di warên cuda cuda ên civakê de destnîşan dikin. Lewra hilbijartina jiyana têledarî û kasibkariya ser sînoran ji rastiya jiyana siyasî, aborî û civakî a gelê Kurd li Rojhilatê Kurdistanê çavkanî digire û bêy peyivîn û axavtin, vê rastiyê diselimîne ku ev kesên han çiqas neçar û mecbûr in ku rû li jiyaneke wisa bixof û cihê tirsê bikin.

Xala balkêş li dor kar û xebata kasibkar û têledarên kurd yên ser sînoran eva ye ku hemû xebitîn û çûn û hatina wan bi veşartî û ne eşkere ye û hertim îmkana vê çendê heye ku bibin goriyên êrîş û teqeya hêzên Komara Îslamî û seba peydakirina pariyeke nan ji malbatên xwe re di nava xwînê de tên gevizandin û jiyana xwe jî ji dest didin. Haleta duyem jî eva ye ku xetereke mezin bo ser jiyana kasibkar û têledarên kurd, hatin û çûna wan di nav rê û erd û zeviyên mayînrêjkirî ên ser tixûban de ye. Ji me re xuya dibe, ji ber van du sedemên ku min qala wan kir, rojane çendîn kasibkar û welatiyên sivîl ên kurd dibin qurbanî û jiyana wan bi narewayî tê rijandin an bi xurtî birîndar yan siqet û nivîşkan dibin. Hebûna mayîn, teqemenî û bombeyên ser sînorên Kurdistana Îranê gellek arîşe û pirsgirêk ji bo xelkê çê kirine. Hejmareke zaf mayîn li ser xalên ser sînorên gund û bajarên Kurdistana Rojhilat tevî welatên din ên cîran hatine çandin ku gefeke mezin in bo ser kar û jiyan û tenahiya xelkê sivîl. Di van çend salên dawî de, ji ber rewşa han, sedan welatiyên sivîl û zehmetkêş ên kurd ê bûne gorî. Di nav wan goriyan de sedan serperest û malxwê malbatan tên xuyakirin.

Kasibkarên kurd ên ku hatin û çûna ser sînor dikin, ji bo peydakirina 5 heya 10 hezar tûmenan neçar in ji du asteng û xetereyên mezin derbas bibin, heya bikaribin vê radeya kêm a dirav bidest bixin. Ya yekê tirs û xetera mayînên çandî ên ser rêyan û her wiha erd û zeviyan e, ya duyem ji êrîşên sîstematîk û teqelêkirina berdewam û bêrehmane a hêzên rejîma Komara Îslamî ye. Dîktatorî û serberedayîbûna berpirsiyarên Komara Îslamî di vê derheqê de bi qasekê ye ku hêşta rêberên vê rejîmê amade nebûne ku peymannameya Otawayê ku di sala 1997'an de li Kanada'yê wek dukomenteke navneteweyî hatiye pejirandin, wajo bikin ku wê peymannameyê berhemanîn, komkirin, guhastin û bikaranîna mayînên dijî kes qedeqe kiriye, û herwiha bona ji holê rakirina mayînan û alîkarîkirin bi goriyên mayînan û paqijkirina rêyan, erd, zevî û çiyayên mayînrêjkirî li Kurdistanê gavan bavêjin.

Lewra ye, mayînên çandî ên nava erd û zeviyên Kurdistanê dijminên nivistî û veşartî ên xelkê bi giştî û nemaze kasibkar û têledarên Kurdistanê ne ên ku li ser sînoran dixebitin û berdewam jî dibin qurbanî û çarenivîsa wan û malbatên wan jî ber bi rojreşî û pêşerojeke nexuya û tejî kul û jan dibe.

Ji bilî tirs û xofa kasibkar û têledarên ser tixûban ji ber hebûna mayînan û hêzên gemar û mirovkuj ên Komara Îslamî, ji aliyekî din ve, ew kar û pîşeya wan di warê cendekî û derûnî ve gellek ziyan û xisarên mezin heye û herdem ji ber derdê êş, jan û arîşeyên karê xwe dinalin. Lê ji ber qursî û giranbûna barê jiyanê û zehmetiyên debara jiyana di bin siya desthilatdariya Komara Îslamî de, ew neçar in di rêya debera jiyanê de, canê xwe heta lêva mirinê nêzîk bikin.

## Hilbijartinên Rejîmê Ji Lîstikekê Zêdetir Nînin

Siyamend Terbî

Cehd û xebatên desthilatdarên rejîma Melayan bona rakişandina xelkê bo ser sindoqên dengdanê berdewam in. Ev cehd û bizavane li Kurdistanê bi awayekî din xwe didine holê û rejîm dixwaze bi fêl û pîlanên cur bi cur xelkê Kurdistanê bona beşdarî di binav hilbijartinan de hay bide û bi vê yekê rewayî û berheqiyê ji bo xwe bidestve bîne. Rewayî û



berheqdayînek ku her ji destpêka hatine ser kar a wê rejîmê ji aliyê xelkê Kurdistanê ve hate mandelkirin. Beşdarînekirina xelkê Kurdistanê li referandom û rapirsiya sala 1358'an rewayî û berheqî ji vê rejîmê stand.

Roja 1'ê Reşemeya 1386'an, li bajarê Mehabadê civînek bi beşdariya cîgirê siyasî – tenahî yê parêzgeha Azerbaycana Rojava û Fermandarê bajarê Mehabadê ji bo şêwrên gund û bajarên derdorê pêk hat. Di vê civînê de navhatî daxwaz ji şêwran kir ku divêt xelkê hay bidin heya ku di binav hilbijartinên meclîsa heştem de beşdariyê bikin. Di civîna han de Mihemedzade, da zanîn ku dijber û neyarên Komara Îslamî bi taybet Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê hilbijartina han baykut kiriye û divê ew jî hewl û bizavekî zêdetir ji xwe nîşan bidin daku xelk beşdariyê di van hilbijartinan de bikin. Ev gotina cîgirê siyasî – ewlekarî yê parêzgeha Azerbaycana Rojava cihê baldan û xalekî balkêş e! Ev gotine bi başî nîşanderê vê rastiyê ye ku PDK Îranê serbarê vê çendê ku ji aliyê wê rejîmê ve bi hilweşandî û qedexekirî hatiye ragihandin û bi hezaran kes ji endamên wê bi destê wê rejîmê hatine şehîdkirin, dîsan jî di nava xelkê xwe de pêgeha taybetî a xwe heye ku desthilatdarên rejîmê hesabeke han jêre dikin û helwesta vê partiyê bi giring dinirxînin. Eva belgeya herî baş ji bo van girûp û aliyan e ku îdeaya dikin PDK Îranê pasîv bûye. Partiyek ku bikaribe %75'ê xelkê Kurdistanê hay bide heya ku di hilbijartinan de beşdariyê nekin, partiyeke çeleng û ektîv tê hesibandin.

Armanca desthilatdarên rejîmê ji meşandina van lîstikane çî ye? Pirsa sereke li vir eva ye ku erê gelo rejîma Melayan sîstemek demokratîk e hetanî ku hilbijartinên demokratîk birêve bibe? Gelo dengder dikarin bi awayekî azad dengan bidin berbijarên xwe ên dilxwaz? Nûnerên parlemanê dikarin yasayên ku di xizmeta pêşveçûna civakê de ne, bi awayekî azad bipejirînin?

Bêguman her hilbijartinek demokratîk bi armanca pêkanîna rewş û delîveya jêhatî bona birêvebirina kar û barên welat, yek ji bingehên sereke yên demokrasiyê tê hesibandin û beşdarî di hilbijartineke wilo de erk û wezîfeya gişt hevwelatiyan e. Lê bi baldan bi derbazbûyiya hilbijartinan di Îranê de, ev yeke bi başî xwe dide kifşê ku di gişt binav hilbijartinan de û yek ji wan, binav hilbijartina Meclîsa Şêwra Îslamî, di navbera tev daxwazkarên berbijariyê de, tenê kesên dilxwazên rejîmê ne ku kêrhatîbûna van tê pejirandin û yên din bi hêcetên cur bi cur tên mandelkirin. Lewra em mêze dikin xelk neçar dibin ku kesên dilxwazên rejîmê hilibjêrin. Li vir bi bawera me berbijarên han di naverok û kakila xwe de, hilbijartiyê/a rejîmê ne, ne yên xelkê.

Gelê Kurd bi başî seh bi wan lîstikane kiriye û di hilbijartinên bi vî awayî de, beşdariyê nakin. Ji ber ku baş ji vê rastiyê haydar in ku çûna wan binav nûneran bo meclîsê, ku di rastî de nûner û hilbijartiyên rejîmê ne, tu guhartinên siyasî, civakî û çandî pêk naînin. Armanca rejîmê ji hilbijartinên han, tenê girtina rûçikek demokratîk e û beşdarî di van hilbijartinan de, rewayîdan bi vê rejîma sedsalên navîn e.

## Şiroveya Peyvên Siyasî

Berhevkar: Omîd Esxeran

omid_anbi@yahoo.com



## PARTÎ "PARTY"

Peyva partiyê ji wateya deste, girûp û hevhizran hatiye weregirtin û ji rêxistinek siyasî û civakî re tê gotin ku hejmarek ji xelkê hevbîr û hevarmanc tê de dora hev kom dibin û bi baskirin û çalakiyên bikom, hewla gihîştin bi armancekê didin ku geşekirina civakê lê bikeve. Herçend ku civîna tak û girûpan her ji berê ve hebûye, lê di nîviya sedsala 19'an de, partî weke civîna deste û girûpên siyasî awayekî fermî bixwe ve girt û di civakên cur bi cur de geşe kir. Di encam vê çendê de, kombûna kesên hevbîr li pirraniya herêmên cîhanê li ser şêwaza partiyan berbipêşve çû. Di encam de partî bû cihê civîna rewşenbîr, ramanwer û kesên ku hez ji geşekirina civakê dikirin û bi rênîşanî û pêşniyarên xwe, delîve ji bo pêşkevtina civakê pêk dianîn. Îro rojê partiya rastîn, partiyek e ku cihê civîna wan kesan e ku ji bo bicîhatina armancên xelkê û dabînkirina berjewendiyên civakî bi awayekî hevbeş xebatê dikin.

Derheq hebûna sîstema yek partî yan çend partî, teoriyên cur bi cur hatine holê. Hin kes hebûna çend partiyan di welat de weke nîşaneya azadî, peloralîzm û demokrasiyê dihesibînin û li ser vê baweriyê ne ku çalakiya partiyên cur bi cur û hebûna bîr û rayên cuda cuda, delîveyên baştir ji bo pêşxistina civakê pêk tîne. Lê desteyek din li ser vê baweriyê ne ku civîna alîgirên hevarmanc di yek partiyê de, bi qazancê civakê ye. Çunku bi xistine rojeva teoriyên rast û dirust guhartin bi awayekî erênîtir di civakê de pêk tên û eva jî dibe sedem ku bingeha demokrasiyê bihêz be û dijberî ji holê rabin. Lê Marksîst tenê buhayê ji partiyekê re didin ku berjewendiya piroltariya yan texa kedkar û zehmetkêşan dabîn bike.

Di rêxistina her partiyekê de, divêt xalên jêr werin liberçavgirtin:

1. **Pirogram "Reglement"**: Weke dukomenta sereke a her partiyekê tê hesibandin ku tev armanc û erkên partiyê tê de hatine diyarîkirin.
2. **Pêrewa hundirîn "Statut"**: Hin rê û rêbazên navxweyî ên partiyê ne ku rêxistin, organên rêberî, konferans, kongire û wd... bixwe vedigire.
3. **Kongire "Congress"**: Bilindtirîn pileya rêberiya her partiyekê ye ku ji nûnerên gişt herêm û rêxistinên partiyê pêk tê. Di kongirê de rapora serok yan sekreterê giştî yê partiyê tê pêşkêşkirin, kar û çalakiyên partiyê tên nirxandin, pêrewa hundirîn tê nû û pesendkirin û vêca endamên rêberiya partiyê, serok yan sekreterê giştî yê partiyê, endamên komîteya navendî, cîgir, ravêjkar û wd.. tên hilbijartin.
4. **Kadro "Cadre"**: Karmendên lêzan û şarezan ên partiyê bixwe digire. Hebûna kadroyên ciwan û pîr di nava refên her partiyekê de, ji bo gihîştin bi armancên partiyê gellek hewce ye.
5. **Rêberî "Conduit"**: Endamên rêberiyê him di asta navxweyî û him di asta derve de rêberiya partiyê dikin. Rêberiya bikom di nav partiyê de, weke astengek li hember tekrewî û xwesepandinê ye.
6. **Pilînom "Plenum"**: Civînek giştî û berfireh e ku tev endamên komîteya navendî, cîgir û ravêjkar beşdariyê tê de dikin û pirsên giring dinirxînin.
7. **Konferans "Conference"**: Civîna nûnerên partiyê ji bo guhartina bîr û rayan derheq mijarên cur bi cur ên siyasî, civakî, aborî û wd... e.
8. **Komîteya Navendî "Comite Central"**: Endamên hilbijartî ên partiyê ku di navbera du kongireyan de kar û barên partiyê birêve dibin. Her wiha berpirsiyariya kongirê li stûyê komîteya navendî ye.

**Çavkanî:**
**Ferhengî Ramiyarî Nîga "Azad Weledbegî"**
**Danêşnamêyê Siyasî (Politicial Dictionary) "Daryûş Aşorî"**

### Werzişvan Rehîm Ehmedîpûr:

# "Werziş Pira Navbera Neteweyên Cîhanê Ye Û Gişt Neteweyên Cîhanê Bi Hev Re Girê Daye"

**Hevpeyvîn/ Hemîd Muxtarî**

Îro rojê werziş yê bûye pirek bona bihevre nêzîkbûna neteweyên cîhanê. Lê mixabin Kurdistana me bi vê sedemê ku herdem di bin destê dagirkeran de bûye, ciwanên Kurdistana dagirkirî pirr bi kêmî karîne şiyan û jêhatîbûna xwe di warê werzişê de nîşan bidin û di asta cîhanê de bên nasandin. **Rehîm Ehmedîpûr**, yek ji wan werzişvanên Kurdistana Îranê ye ku di asta Kurdisatana Başûr û Îraqê, di rişteya bezê de heya niha karî ye çendîn serkevtin û xelatên cur bi cur bidestve bîne.

Rehîm Ehmedîpûr sala 1978'an, li bajarê Nexede a Kurdistana Rojhilat hatiye dinê. Navhatî çend sal e ku di nava refên Pêşmergên PDK Îranê de ji bo azadî û dabînbûna mafên neteweya Kurd xebatê dike. Rehîm Ehmedîpûr serbarê xebat ji bo wekheviya mirovan, yek ji werzişvanên herî çalak di asta Kurdistan û Îraqê de ye. Herwiha vê dawiyê, ji aliyê Navenda Werzişî a "RFG"yê li Kerkûkê, xelata werzişvanê herî biexlaq ji wî re hate pêşkêşkirin.

Me li nêzîk ve kar û çalakiyên Rehîm Ehmedîpûr şopandin.

Kerem bikin, eva hûn û hevpeyvîna me bi Rehîm Ehmedîpûr re:

**Hûn werzişê çawa pênase dikin?**

Bêşik di vê serdemê de werziş weke beşeke girîng di jiyana her miroveke/î pêşkevtî de tê hesibandin. Werziş di tu welateke pêşverû û demokrat de li jêr desthilata partî yan dewletan de nine. Hemû welatên pêşkevtî yên cîhanê, ji werzişê weke alavekê bona nasandina netewa xwe di asta navnetewî de mifahê werdigirin.

Werziş di serdemê niha de yê bûye pira pêwendiyan di navbera netewan de û weke zimaneke navnetewî, gişt netewên cîhanê bi hev re girê daye. Mirov ji rêya werzişê ve dikare pêwendiyên rasterast di navbera netewan de pêk bîne û ji rêya han ve çand û şaristaniyet û dîroka xwe a netewî û deb û edet û herwiha hemû ew xalên xwe yên erênî bi neteweyên din bide nasandin.

**Hûn pêgeha werzişê, di bin desthilatdariya Rejîma Komara Îslamî a Îranê de çawa dibînin?**



Di rastî de divêt bibêjim ku tevî bi destvegirtina desthilatê di sala 1979'an, li Îranê ji aliyê rejîma Îslamî ve, pêkhata werzişa welatê Îranê tûşî sekinandin û lawaziyê dibe û hevdem werzişa Dewletî, Leşkerî û Pîşesazî tê holê. Piştî derbazbûna pitir ji 29 salan ji desthilatdariya rejîma Komara Îslamî di Îranê de, em dibînin ku kesayetiyên dewletî û payebilind ên Sipaha Pasdaran û pîşesaziya dewletî nekarîne werzişa Îranê vegerînine ser pêgeha xwe ya berê.

**Heya niha we çend serkevtin û xelat di warê werzişî de bidestve aniye?**

Divêt bibêjim ku min ji sala 2004'an ve heya niha bi awayekî berdewam li pirraniya kêbirkêyên bezê di asta Kurdistan û Îraqê de beşdarî kiriye û serkevtinên min bi vî awayî bûne: Sala 2004'an, min pileya yekem di beza 10 kîlometrî a bajarê Duhokê bidest xist. Sala 2005'an, ez bûme xwediyê pileya yekem di beza 10 kîlometrî a Parêzgeha Kerkûkê. Min di sala 2006'an, karî pileya duyem di helatina 10 kîlometrî a bajarê Bexdadê bi destve bînim. Sala 2007'an, min karî pileya yekem a revîna 10 kîlometrî li Parêzgeha Mûsilê bidestve bixim. Min herwiha rekorda maratona 42 kîlometrî tevî werzişvan **Faxir Mewlûdî**, di heyamê 2 seet û 16 deqîqe û 2 çirkeyan, ku bi hinceta 2'ê Rêbendanê, salvegera damezirandina Komara Kurdistanê hatibû lidarxistin, tomar kir. vê dawiyê jî min xelata werzişvanê herî biexlaq ya Navenda Werzişî a RFG'yê, li Parêzgeha Kerkûkê bidestve anî. Min herwiha çendîn xelat û serkevtinên din wekî mamostayê werzişê bi xwendekarên dibistana destpêkî a kampa Azadiyê re bidestve anîye.

**Bernameyên te ji bo pêşerojê çi ne?**

Qirar e tevî girûpên werzişî yên dibistana destpêkî a kampa Azadî ya PDK Îranê, di Festîvala Werzişî a Xwendekarên Herêma Kurdistanê de beşdariyê bikim. Bi vê hêviyê ku bikarim azmûnên xwe ên çendîn salî bi wan re parve bikim.

**Peyame te ji bo werzişvanên Kurdisatanê çi ye?**

Werziş bi xwe peyama aştî, lêborîn û hezkirinê ye. Lewra divêt werzişvanên Kurdistanê ji rêya werzişê ve û bi mifahwergirtin ji teknolojî û zanista serdem hebûn, nasname çand û dîroka netewa xwe bi neteweyên cîhanê bidin nasîn.




Rehîm Ehmedîpûr:
"WERZİŞ PEYAMA AŞTÎ, LÊBORÎN Û HEZKİRİNÊ Bİ XWE RE TÎNE"

## Xelata Azadiya Çapemenî A Sala 2007'an, Ji Ednan Hesenpûr re Hate dan



Xelata Azadiya Çapemeniyî a sala 2007'an, roja çarşem, 20.02.2008'an, ji aliyê Saziya Nûçegihanên Bê Sînor a Taya Swêdê ku ji bo rojnamevanê Kurd, **Ednan Hesenpûr**, hatibû diyarîkirin, bê beşdariya malbata wî hate pêşkêşkirin.

Xelata han di rê û resmekê de ku di hola çapemeniyê a Wezareta Derve ya welatê Swêdê û bi beşdariya nêzîk bi 70 kes ji kesayetiyên Siyasî, rojnamevan û nivîskaran li Stokholmê pêk hatibû, ji aliyê **Nasir Sîna**, Rojnamevan û berhevkarê pirogramên beşa Kurdî a Radyoya Navneteweyî a Swêdê, bi nûnerî ji malbata Hesenpûr hate wergirtin.

Nasir Sîna piştî wergirtina xelata han, got: Biryara lidarvekirina Ednan Hesenpûr vê dawiyê piştî pêdeçûneke din ji aliyê sê dadwerên diyarîkirî, li ser biryara **Şahrûdî**, Serokê Desthilata Dadwerî ya Îranê hate betalkirin. Bi vê sedemê car din doza Hesenpûr ber bi dadgehê hate şandin da ku biryareke din li ser were dayîn.

Di rê û resma han de her wiha xatûna **Ganênêl Warnêr**, Seroka Taya Swêdê a Nûçegihanên Bê Sînor, xatûna **Karîna Rotbêrî**, Nivîskar û Rojnamevana Swêdî û **Kurdo Boksî**, Nivîskar û Rojnamevanê Kurd, beşdar bûn.

## Sê Çalakên Sivîl Yên Kurd Bi Cezaya Îdamê Hatin Mehkûmkirin

Taya 30 a Dadgeha Şoreşa Tehranê, sê çalakên Kurd bi navên **Ferzad Kemanger**, **Elî Heyderiyan** û **Ferhad Wekîlî**, bi cezaya îdamê mehkûm kir.

Sê çalakên navhatî di meha Tebaxa sala 2006'an de, bi buxtana "muharib" (şer bi xwedî re), hatin girtin û di girtîgehên ewlekarî ên Kirmaşan û Sine û benda 209 a zîndana Êvînê de hatine îşkencekirin.



Ferzad Kemanger û Elî Heyderiyan

Ev sê çalakên sivîl yên Kurd, roja 30.01.2008'an, ji aliyê berpirsê taya 30 a Dadgeha Şoreşa Tehranê, di mehkûmkirineke 7 deqîqeyî de, bi îdamê hatin mehkûmkirin.

Li gor agahiyên Çalakên Mafê Mirovan li Îranê, parêzerên van sê çalakên sivîl, bi tundî nerazîbûna xwe li dijî biryara han eyan kirine.

Ji bo hilwişandina biryara daliqandina van sê girtiyên Kurd, kampaynek hatiye destpêkirin.

## Xebatkarên Jin Ên Kurd Di Girtîgehê De: "Me Ji Bîr Nekin"



Fatime Hana Ronak

Sê xebatkarên Jin ên Kurd û endamên **Civata Jinên Azermêhr** a Sine, bi navên **Fatime Guftarî**, **Ronak Sefazade** û **Hana Ebdî** ku dema çend mehan e di girtîgehê de ne, di pêwendiyeke telefonî de tevî berpirsa Civata "Azermêhr" li ser rewşa xwe a nebaş a di girtîgehê axivîn.

Wan di vê pêwendiya telefonî de tekez kirin ku sûça wan tune û tenê guneha me hewl û xebat ji bo wekheviya mirovan bûye. Mirovên ku di warê neteweyî û zayendî de tevî ferq û cudahiyan berbirû dibin.

Me li ser navê mirovahiyê daxwaza mafê wan yê mirovî dikir.

Wan zêde kir û gotin: piştî derbazbûna çend mehan li ser girtin û îşkencekirina wan û herwiha sûçbarkirina wan bi buxtanên pûç û nerast her li ser baweriyên xwe ne.

Ev pêwendiya telefonî bi vê peyva kurt bi dawî hat: "Me ji bîr nekin".

Hêjayî gotinê ye ku Fatime Guftarî çend rojan berî niha bi dana rehîna 15 milyon tûmenî ji girtîgehê serbest hate berdan.

## "RMMK"ê Di Nameyekê De Bo Saziyên Navneteweyî, Daxwaza Azadkirina Kebûdvend Dike



Rêxistina Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê, roja 23.02.2008'an, bi şandina nameyekê ji bo Sekreterê Giştî yê Neteweyên Yekbûyî, Civata Mafê Miorvan ya Navneteweyî, Saziya Efûya Navneteweyî, Rêxistina Çavdêr a Mafê Mirovan û çend sazî û kesayetiyên azadîxwaz û piştevanên mafê mirovan, daxwaza ji wan kiriye ku ji bo serbestberdana Mihemedsidîq Kebûvend, çalakê Mafê Mirovan, berpirs û damezirînerê Rêxistina Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê ku di sala 2007'an de ji aliyê rejîma Komara Îslamîa Îranê ve hatiye girtin û niha di girtîgehê di rewşeke pirr xirab de ye, hewlê bidin.

# BIYANÎBÛN



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Di her dem û domanên dîrokî de liv û tevgerên awarte, bûne destpêka nûvedaniyên civakî û moşen û lokomotîfa veguherînên mirovî. Pêxemberê îslamê jî digot: "ola îslamê xerîb(nenas) hatiye û dê xerîb biçe." Rast e. Îro gellek fîkr û ramana gellek ramanwerên hemdem û digel wê jî paradîgmayên wan ên nû tim xerîb û awarte têne dîtin. Û ev awartebûn jî destpêka domana nû ya şoreşa bîrayî ye. Dibe ku ev ziman û feraset îro xerîb bê dîtin; belê divê xerîb nemîne… Ji bo ku xerîb nemîne jî divê çi ji destê mirov bê, mirov qet texsîr neke.

Nûvedaniya nû ya parastina ramana hawirnasiyê, bi vejîna gelekî jibîrbûyî û zimanê wî yê qedîm re pir li hev e. Îro hawirnas û derdorparêzên dinê, pisporiya xwe di riya parastina celebê lawirên hov de diserifînin. Lê li aliyê din…? Mixabin li aliyê din Mirovahiya dinê, tevlî pispor û zanyarên xwe, di qirnê 21'ê de û her wiha di heyama ku mirov hildipekin qadên fezayê de, çavê xwe ji şer û pevçûnên navneteweyî û kuştina mirovan re kor, guhê xwe ker kiriye… Ev yek biyanîbûn e.

Biyanîbûn, tenê dikare di dil û mêjiyê kesên ku ji hestyarî û pejnkariya mirovî bêpar bin de cih bigire û hebûna xwe bikudîne. Jixwe wêjeya ku di bin bandora biyanîbûnê de mabe ne dikare taybetmendiyên wêjeyê û ne jî hêjahiyên hunerî bi xwe re hilgire. Belê tenê dikare wekî çend rêzik nivîs bê dîtin an jî di degera komeke tekstên têkçûyî de bê nirxandin.

Biyanîbûn, veguherandina derûn û kakilê jiyana mirov a xweser û taybet ku bêhemd li bêahengî, bêwateyî û jixwebidûrketineke bêyom dadigere ye. Bi vegotineke din biyanîbûn, mirov ji kirdeya jiyanê derdixe û wî/wê wekî bireserek e bênirx û tişteyî dide bikaranîn û xebitandin. Kengî ku ber û berhemên ku mirov bi destê xwe diafirîne hin bi hin ji reseniya xwe bidûr dikevin û ku bedewî û gewzîneriya wan ber û berheman li dijminahî û têkbirina mirov dadigerin, wê çaxê biyanîbûna mirov û civakê jî dest pê dike. Û wê gavê mirov û civak dibin dîl û bindestên ber û berhemên ku wan bi destê xwe afirandine. Biyanîbûn, bi awayekî jî bi alozî û tevlîheviya pêwendiyên civakî re rû dide. Belê ev geremol û aloziyên civakî ne îro; hê di destpêka xwedîtiyê(mulkiyetê) derketine holê. Xwedîtî, her çend ku çendanî û çawaniya hilberiyê zêde dike jî, xwedîtiya arizî ya ku gihîştiye merhaleya îro, xwezayê û hemû heyberên wê roj bi roj dihelikîne.

Biyanîbûn, di derûniya mirov de, di encama lêkdana hewldanên ku bi mebesta jiyaneke serbilind û rûmetdar dest pê dike û liv û bizavên ku mirov gav bi gav arasteyî bêrûmetî serberjeriyê dike de pêk tê û teşe digire. Her çend ku rûxînerî, wêrankerî û biyanîbûna mirov a civakî di hemû warên jiyanê de pêkan be jî, dîsa cerbirandin û ewêzî (xelef) û vegerandina wê tiştekî gengaz e. Belê çilvirîn, kavilkirin û dejenerekirina wêjeyê tu car bi hêsayî nayê cebirandin. Û nepêkan e jî. Ango, bêeslkirina civak an jî neteweyekê, pêşî bi bişavtin û biyanîbûna wêjeyê dest pê dike. Bi kurtayî jehra biyanîbûn û bêesilbûna civakê, di serî de xwe di wêjeyê de dide der. Peyre jî hin bi hin li hemû rehên çanda gel û civakê belav dibe û wê dîl radest digire. Ji do heta îro- di dîroka wêjeya gelan de- lixwexwedîbûn û jixwebidûrketina mirov û civakê, wekî du dijminên pozber û lêkneker misêwa bi hev û din re şer dikin û dikevin cirê. Herdu dijberên qedîm û kevnar her dem li dij hev belê pevre dijîn. Bi heman awayî jî her gav bi hev û din re dikevin nava rikbariyeke giran. Bi vê lêkdanên dijwar re yek li ya din dadigere. Şerê navbera herduyan dişibe şer û pevçûnên navbera mirovên bilebat û afirîner ên ku puxteya jiyanê bidest dixin û kesên têkçûyî yên ku di nava hevkêşî û aloziyan de winda dibin. Ev şer û lêkdanên bênavber car caran li serkeftinên bêhempa û car caran jî li têkçûnên bêkêr û bêxêr dadigerin. Bi awayekî din, yek yekê winda dike an jî yek yeka din dişibîne xwe.

Mirovahî, digel ku tiştên pir payebilind û qîmetdar diafirîne bi heman awayî gellek tiştên kerax bêteşe jî dixuliqîne. Ji aliyekî ve di hêla zanist û teknolojiyê de pêşve diçe; şoreş û veguherînên pêemsal bidest dixe û ji aliyê din ve jî nirx û hêjahiyên dîrokî bi destê xwe ji holê radike. Zimanê ku bi hezaran sal hatiye axaftin, çand û hunera ku dexmeya xwe li dîrokê daye, wêjeya ku bûye ronîdariyên dîrokî û hwd. hemû bi teknolojiya nûjen re hêdî hêdî ji qada jiyanê vedikişin û hin bi hin winda dibin.

Mixabin îro ro mirovahî xwe dispêrê civakeke yekpar, bêruh, bêgiyan bêhest û bêraman. Bi vê yekê re dahatûya cîhanê û tevê mirovahiyê dikeve xetereyeke mezin û çarenîn. Lewre mirovahiya ku ji çand, wêje, huner û estetîzma giyanî bidûr bikeve, dê tucar nikaribe xwe ji belawat û karesatên vê dinê reha bike. Bi vegotineke din; biyanîbûn li şûna ku mirov her gav bi kesên din re di nav kar û xebatên hevpar û sûdewar de be, hêjahiyên payedar biafirîne; ji aliyekî ve ji reseniya xwe bidûr dikeve ji aliyê din ve jî dikeve nava liv û bizavên pelos û di tevgerên kerih û bêyom de digere.

Kaniya Helbestan

## Peyamek Evînî



**Bêrî Bihar**

Bi jor ve hilkişiya peyama mêrik,
Bi tîpên hêvî û êzarî mişt,
Hilweşiya mêrik çog da erdê.
Dirêj bûn bi jor de der du destên wî
tije gazinc
Pêçiyên destên wî ji hev xeyidîn
her yek bi aliyekî ve rep bû.
Mêjiyê wî li dû şopên gûstîlokî gêj bû,
Bîstek dîn peyam
weke kaxizên hûr hûr bi ser de bariya.
Bû pelqeçîkên ji keskesoran biriqî,
ketin ser ritamê,
Teqiyan bûn zarokên rûnûr û rûgeş.
Wî hemî kembêz kirin, maç kirin, bêhn kirin.
Li dû wan destên ji ritamê dirêj bûn.
Yek bi yek kişandin nava xwe.
Mêrik li dû wana xwe avête nava ritamê,
Ritam zuha bû,
Hişk bû,
Bû tofaneke tozê,
Li ser behran fûriya.

Mêrik weke qafikan hişk û zuha
Li ser perçekî peyama xwe hilkişiya jor.
Dest û devekî ji qafik,
Çavên ji ritameke hişk,
Ji bêhna ritamê serxweş bû,
Hilweşiya ket ber derê bihuştê.

Keybanû nêzî şêwirdarîyê bû,
Dora wê tijî ferîşte,
Çavên spehî, birûyên hîwa,
Bejn û balên bêhempa.
Pirsî ji Xweda:
-Ew çi rewşa wî ye, çi dinivîse?
-Qeet!!! Got Xweda, evîndara xwe dixwaze.
Bersiv bide û bibêje,
-Kengê ew fêrî jiyana bi ritamê re bû,
Ew çax wê lê vegere hezkiriya wî
Ya ji ritamê…

# Xelatên Oskara 2008'an Hatin Debaeşkirin



Xelatên Oskara îsal ji gihiştin xwediyên xwe. Rê û resma bexşîna xelatên Oskara îsal di cew û hewayek baranî de piştînîvroya roja yekşem, 24'ê Şibatê hate lidarxistin.

Xelata yekemîn a Oskarê bi baştirîn neqşkerê cil û bergan(neqşkerê kincên Elîzabitê) anku bi **Eliksandira Bayrin** hate bexşîn. Dûre gerr gihîşte xelatên girîngtir.

Baştirîn Fîlm: **Tu cihek ji bo pîremêran nîn e**.

Baştirîn derhêner: **Birayên Koên** ji bo fîlma tu cihek ji bo pîremêran nîn e.

Lîstikvanê herî baş: **Daniyêl Dil Loyîs** ji bo fîlma **Dê xwînek bihê rijandin**.

Lîstikvana herî baş: **Maryan Kotyar** ji bo fîlma **jiyan bi rengê gula sor**.

Lîstikvanê alîkar yê herî baş: Javier Bardem ji bo fîlma tu cihek ji bo pîremêran nîn e.

Lîstikvana alîkar ya heî baş: Tilda Swinton (Micheal Clayton).

Baştirîn Senaryo: **Birayên Koên** ji bo fîlma **cihek ji bo pîremêran nîn e**.

Kameravanê herî baş: **Rabirt Elsovît**, kamêravanê fîlma **dê xwînek bihê rijandin**.

**Lîstikvanê Alîkar ê Herî Baş:**
Javier Bardem (No Country For Old Men)

**Lîstikvana Alîkar a Herî Baş:**
Tilda Swinton (Michael Clayton)

**Fîlma Biyanî ya Herî Bap:**
The Counterfeiters (Avusturya)

**Fîlma Anîmasyon a Herî Baş:**
Ratatouille

**Belgefîlma Herî Baş:**
Taxi to the Dark Side (Alex Gibney û Eva Orner)

**Senaryoya Orjînal a Herî Baş:**
Juno (Juno)

**Derhêneriya Dîmenan a Herî Baş:**
Robert Elswit (There Will Be Blood)

**Muzîka Orijînal a Herî Baş:**
Dario Marianelli (Atonement)

**Strana Herî Baş:**
"Falling Slowly" Glen Hansard û Marketa Irglova

## Televîzyoneke Kurdî Ya Înternetî Dest Bi Weşana Online Kir




Wekî ku di destpêka vebûna Hawar Kurdistan Media Groubê de hatibû diyar kirin ku Hawar TV projeyeke demdirêj a Hawar Kurdistan Media Groupê ye.
Hawar TV dê carê bi awayekî online weşanê bike. Piştre li gorî derfetan dest bi weşana xwe ya normal bike.

Di televizyona înternetê de bi zaravayên Kurdî yên kurmancî û soranî hûn dikarin klîbên nû û yên curbicur ên kurdî, fîlmên dokumanter, fîlmên ji sînemaya kurdî, fîlmên ji sînemaya cîhanê, fîlmên karton bo zarokan, kilamên cur bi cur yên dengbêjan, şanoyên kurdî, konserên hunermendên kurd, dîmenên kêf û henekê, dîmenên ji Kurdistan û Cîhan temaşe bikin.

**Temaşe kirina televizyona înternetê Hawar TV**

Hûn dikarin weşanê ser malpera Hawar TV 24 seatan temaşe bikin. Her wiha hûnê karibin agahiyên herikîna weşanê jî di demekî nêzîk de ji malperê hîn bibin.
Hûn dikarin ji navnîşana www.hawartv.hkmg.net bigêhin malpera Hawar TV. Di malperê de pêlê nîvîsa Web TV bitiqînin û temaşe bikin.
Her wiha kesên ku bikarhênerên Facebookê ne, beyî ku bikevin malpera Hawar TV dikarin bi tomar kirina player a weşana online di profilên xwe de, rasterast ji rûpelên xwe yên li Facebookê televîzyona înternetê Hawar TV temaşe bikin. Divê bo vê yekê bikarhênerên Facebookê vê navnîşanê bitiqînin, http://apps.facebook.com/mogulustv/?channel=hawartv
Hûn dikarin daxwazî yên xwe bo weşandina klîban û pêşniyarên xwe bişînin navnîşana hawartv@hkmg.net

Enistîtoya Kurdî Li Kolnê Gaveke Dîrokî Avêt:

## Kurdên Cîhanê Bi Rêya Înternetê Fêrî Kurdî Dikin

Enistîtoya kurdî li Kolnê piştî amadekariyên dirêj ji bo fêrkirina tevayê Kurdan li cîhanê bi rêya




înternetê kursa fêrkrina zimanê Kurdî vedike. Kurs pêşî bi zaravayê kurmancî dest pê dike. Diyalektên din jî di rê de ne. Enistîto dê tevayê bersivên xwendevanên zimanê Kurdî yekser bi rêya înternetê an jî telefonê bide.

Li gorî zanyariyên ji rêveberiya enistîtoyê hatiye girtin, kurs 26'ê Şibatê seet 21.30 dest pê dike. Mamostayê kuesê **Fergîn Melêk Aykoç** e. Kurs rojên sêşem, çarşem û pêncşembê dê bête dayîn.

**Jêder: Zarathustra News**

# Girûpa Kamkaran Xwe Amadeyî Cejna Newrozê Dike



Kamkaran bi muzîka xwe dê coşê bidin Newroza îsal

Girûpa hunerî a Kamkaran ku dîrokek dûr û dirêj di xizmetkirina bi muzîk, stran û kultura Kurdî de hene, li berberê hatina cejna neteweyî a Kurdan, cejna Newrozê de, amadekariya birêvebirina çendîn konseran di welatên cur bi cur yên Ewropayê de dike.

Gerra hunerî a girûpa Kamkaran dê di çend rojên tê de dest pê bike. Koma han di destpêkê de dê li welatê Îspaniyayê stranên Kurdî û Farsî pêşkêş bikin. Dûre jî bi merema birêvebirina konseran dê rû ji welatê Almaniyayê bikin.

Qirar e di rojên 8-9 û 10'ê Adarê de, Koma Muzîkê a Kamkaran li her sê bajarên Koln, Firankfort û Dosildorfê de konseran birêve bibin û dûre jî dawî bi geşta xwe a hunerî bînin û vegerine Tehranê.

# UNESCO: "Ziman Dilê Jiyana Civakî, Aborî Û Çandî Ye"

Li Cîhanê 6 hezar û 700 ziman hene û nîvî ji van li ber wendabûnê ne.

Her wiha ser kiryarên xirab ên li dijî zimanê dayîkê yên li Tirkiyeyê jî bal hat kişandin û hat gotin ku kurdî hîn jî mîna zimanê perwerdê nayê bikaranîn, reklamên bi kurdî jî qedexe ne, di TVyan de bi kurdî weşan nayê kirin û kurd di nav sazî û dezgehên fermî de nikarin xwe bi zimanê xwe îfade bikin, ev jî dibe sedema nerazîbûnan.

Di Komcivîna UNESCOyê ya sala 1999an de biryar hat girtin ku 21'ê Şibatê mîna Roja Zimanê Dayikê ya Navneteweyî bê pîrozkirin. Ev biryar ji sala 2000'î û vir ve pêk tê. Berpirsê Giştî yê UNESCOyê "Koichiro Matsuura", di derbarê girîngiya vê rojê de weha got: "Ji bilî qadek ku pispor li ser lêkolîn bikin, ziman dilê jiyana civakî, aborî û çandî ne jî. Dema me dirûşma 'Sala Zimanên Navnetewî' diyar kir jî, em ji vê rastiyê derketin rê. Ziman girîng in".




Li gor daxuyaniya UNECSO'yê ya di malpera wê ya fermî de, di parastina nasnameya komik û kesan de girîngiya ziman jiyanî ye, lê her ziman heman muemeleyî nabîne. Li cîhanê 6 hezar û 700 ziman hene, lê nîvî ji vana li ber wendabûnê ne. Li gor pisporan ji sedî 96ê van zimanan ji aliyê tenê ji %4'ê nifûsa cîhanê ve tê axaftin.

*Kurteçîrok*

# Gurê Li Pişt Derî

Dema ku li derî xistin, Mihî xanim û Beran axa tevî qîza bedew û biçûk a xwe li dîwanxanê de rûniştibûn.

Keçikê got: Dadê kesek li pişt derî ye.

Diya wê got: Delala min ew gêzikfiroş e.

Bavê wê bi zîrekî û hişyarî ve li cihê xwe rabû û ji pencerê ve çavek li derê gerand û got: Gurge, ez dêla wê dibînim.

Dayîk: Ker û sefêk nebe. Ew gêzikfiroş e û ew dêla ku tu dibînî, gêzik e.

Ber bi aliyê derî ve çû û derî vekir.

Ji nişkîve Gur hate jor û êrîş kire ser qîza wan û rewand.

Dayîkê her porand û lorand, paşan îtiraf kir: Tu rast bûyî.

N: Cîminz
W: şerîf Felah- Rondik

## 10 Saliya Otonomiya Kulturî A Kurdên Rûsiyayê Hat Pîrozkirin

Li koşka Mala neteweyan, bîranîna 10 saliya Otonomiya neteweyî, kulturî a Kurdên bajarê Moskovayê bi amadebûna hejmarek zaf ji kesayetiyên Kurd û Rûsî yên navdar û nûnerên kêmnetewan birêve çû.

Li destpêkê de birêz **Osmanov** Serokê Otonomiya Kulturî a **Metleb** û **Pîter Lîmpert**, Serokê Mala neteweyên axavtinên xwe pêşkêş kirin û qala vê yekê kirin ku Otonomiya kulturî a Kurdî, yekemîn rêxistina kêmneteweyan bûye ku dest bi karên xwe di bin vî navî de li moskovayê kiriye.

Paşan nûnerê H. H. Kurdistanê axavtinek di vê derheqê de pêşkêş kir û hêviya xurtbûna zêdetir a rolê Kurdan di Rûsiyayê de xwest.

Herwiha hejmarek ji nûnerên kêmneteweyan gotarên xwe pêşkêş kirin û dûre jî çendîn stranên Kurdî yên folkilorî pêşkêşî amadebûyan hatin kirin û bi mêvandariyê dawî bi rê û resmê hat.

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com

## Trajîdiya Zimanan Ji Çavê UNESCO'yê Ve




UNESCO'yê da xuyakirin, nîvek ji 6700 zimanên cîhanê ber bi neman û xetera ji nav çûnê ne û her 15 rojan zimanek li dinyayê ji nav diçe.

Rêxistina Zanistî, Perwerdehî û Çandî a Neteweyên Yekbûyî(UNESCO) di daxuyaniyekê de bi hinceta Roja Navneteweyî a Zimanê Zikmakî îlan kir, her 15 rojan zimanek li dinyayê ji nav diçe!

Sala 2008'an ji aliyê Civata Giştî ya RNY ve, weke **sala navneteweyî a ziman** hatiye îlankirin.

Eva di halekê de ye ku karnas li ser vê baweriyê ne ku %96 ji zimanan tenê ji aliyê 4 ji sedê li nifûsa cîhanê tê bikaranîn.

Di roja Navneteweyî ya Zimanê Zikmakî de, - ji bilî Başûrê Kurdistanê - qedexe, çewsandin, astengî û asîmîlasyon li ser zimanê Kurdî li Bakûr, Rojhilat û Rojavayê Kurdistanê didome.

Li Kurdistana Îranê heta niha zimanê Kurdî ji aliyê rejîma kevneperest ya Komara Îslamî nehatiye qebûlkirin û Kurd ji vî mafê rewa û mirovî bêpar in. Bi taybetî, perwerdehiya bi Kurdî bi tevahî qedexe ye û gelê Kurd îsal jî ev roje bi xemgînî pîroz kir.

## Komara Îslamî Li Dijî Serxwebûna Kosovoyê Ye



Roja yekşem, 17'ê Şibata 2008'an, Ewropa bi bûyereke girîng hejiya! Di vê rojê de Parlemena Kosovoyê civîneke awarte pêk anî û biryar girt ku ji Sirbistan veqete. Bi vê yekê serxwebûna xwe îlan kir û Kosova bû welatê 49'emîn ê Yekîtiya Ewropayê. Girîngiya vê biryarê di vê çendê de ye ku di sedsala 21'an de, ew jî li Ewropayê welateke serbixwe pêk hat. Bi vî awayî, Parlemana Kosovayê cudabûna vê parêzgehê ji welatê Sirbistanê, weke welateke serbixwe, demokratîk û hakim bi ser çarenivîsa xwe da îlankirin û weke welatê herî nû yê cîhanê kete ser xarîteya dinyayê.

Bi serxwebûna Kosovoyê nîqaşeke xurt kete rojeva siyasî ya cîhanê û hin welat nerazî derketin û hin welatan jî ew biryar pejirand û Kosovo bi fermî nas kirin. Amerîka, Birîtanya, Almanya û gellek welatên din ên mezin eniya razî û welatên weke Rûsya, Îspanya, Îrland, Qubris û wd.. li dijî biryara serxwebûna Kosovoyê ne. Pirraniya welatên ku pirsa neteweyî di wan welatan de heye û doza han çareser nakin, li dijî serxwebûna Kosovoyê derketine. Komara Îslamî niha di medyayên xwe de bi berfirehî propagandaya neyînî li dijî serxwebûan Kosovo dike û piştevaniyê ji helwesta Rûsiyê dike.

## 100 Milyon Mirovên Nexwendevan Di Welatên Erebî De Hene



Rêxistina Çandî ya Yekîtiya Ereb raporek nû derheq rewşa nebaş ya nexwendevaniyê di welatên Erebî de weşand û tê de hatiye destnîşankirin ku 100 milyon mirov ji xelkê welatên Erebî nikarin bixwînin û binivîsin! Rapora han dide zanîn ku nîvek ji jinên van welatan ji nexwendevaniyê derd û eleman dikşînin û ji vê mafê berheq hatine bêparkirin. Hin fakterên kulturî û deb û edetên kevneşop bûne sedem ku jin ku nîvek ji nifûsa van welatane pêk tînin, ji mafê xwendinê bêpar bimînin. Rapora han eşekere dike ku 46 ji sedê a keç û jinên welatên Ereb nexwendevan in.

Karnasên siyasî û civaknasiyê, sedema bingehîn ya vê pirsgirêkê vedigerînin bo nebûna demokrasiyê û kêmbûna heza dewlet û desthilatdarên welatên Ereb bona jordebirina asta xwendevaniya xelkê.

Rêxistina Çandî a Yekîtiya Ereb ji ber vê rewşê, bi xurtî nigerniya xwe dide xuyakirin û daxwaz ji 21 welatên Ereb dike ku gavên micid di vê derbarê de bavêjin.

## Bermîleke Neftê Bû 100 Dolar, Lê Xelkê Îranê Di Xizanî Û Birçîbûnê De Dijîn



Mehmûd Ehmedînejad berî ku bibe Serok Komar, propagandaya vê yekê dikir ku dê diravê neftê bîne ser sifrika xelkê Îranê, lê me dît ku ew gotin û îdea tenê dirûşmeke pûç û vala bû, pereyê ku wî bas dikir, zêdetir ji bo Hizbulah, Hemas û girûpên din ên terorîstî re hate şandin. Buhayê petrolê wê midehê, gihîşte nirxa xwe a herî zêde û rekordeke mezin tomar bû, niha bermîleke neftê bi 100 -102 Dolaran tê firotin, lê em dibînin gelên Îranê di xizanî, destkurtî û birçîbûnê de jiyanek dijwar derbas dikin. Buhaya kinc, hatin û çûn, alavên xanîçêkirinê, alavên navmal, elekterîkê û wd... gellek zêde bûye. Ji hemûyan girantir buhaya derman û serdana duktor û nexweşxaneyan e.

## Îran Bi 33 Milyon Dolaran Hate Cezakirin




Roja duşem, 25'ê Şibata 2008'an, dadgehekê li Amerîkayê, bi tawana desthebûna Îranê li teqîna balyozxaneya Îsraîlê li welatê Arjantînê, ew welat bi 33 milyon Dolaran caza kir.

Yek ji Dadwerên Dadgeha Federal ya Amerîkayê, **Alen Sîgal Hîvl** got: Îranê di teqîna sala 1992'an a balyozxaneya Îsraîlê li Arjantînê de dest hebûye ku tê de 29 kes hatibûn kuştin, lewra li ser biryara dadgehê, Komara Îslamî a Îranê divêt 33 milyon Dolaran bide malbata **Deyvîd Rafael** ku di wê teqînê de jiyana xwe ji dest dabû.